Bidestveanîna mafên neteweyî yên gelê Kurd di çarçoveya Îranek Demokratîk û Federalî de

Hejmar: 28
30'ê Nov 2005
Buha: 150 Tûmen




Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

**Di xwenîşandaneke nerazîbûnê de, Xwendekarên Kurd li Tehranê xwastin ku binpêkirina mafên mirovan li Kurdistanê were sekinadin û pirsgirêka Kurd ji rêya demokratîk bihê çareserkirin**

Roja 27.11.2005'an, komeke zaf ji xwendekarên Kurd li hember zanîngeha Tehranê meşeke nerazîbûnê lidarxistin û xwastin ku binpêkirina mafên mirovan li Kurdistanê bihê sekinadin û pirsgirêka Kurd ji rêya demokratîk were çareser kirin.



# DÎSAN CINAYET

## Fermandereke hêzên leşkerî li Mehabadê Ciwanê Kurd Şêrko Emînî da ber guleyan û kuşt

Dîsan destên qirêj yê desthilatdarên Komara Îslamî ya Îranê bi xwîna ciwaneke Kurd sor bû. Îcar li Mehabadê û di roja 20.11.2005'an de, Fermandereke binkeya hêzên serkutkar yên rejîmê "Kelanteriya 13" li taxa "Pişt Tepe" ya bajarê Mehabadê bi otombêlekê dû jinekê dikeve û dixwaze bêhurmetiyê bi wê bike. Ciwanê Kurd Şêrko Emînî dijî vê kiryara wî berpirsê leşkerî sekinî û ev kare bû sebeba çêbûna nîqaşê di navbera wî ciwanî û Fermande de. Wî di cî de Şêrkoyê bêguneh da ber guleyan û kuşt. Piştî encamadan vê cinayeta hov, hejmarek ji ciwanên şoreşvan yên bajarê Mehabadê êrîşê dikin ser vê Paygehê û agir ber didin otombêla wî Fermanderê rejîmê.

Xelkê xebatkar û welatparêz yê Mehabadê roja duşem, 21.11.2005'an ji bo xuyakirina nerazîbûna xwe li hember kuştina Şêrko Emînî bi destê Fermandereke hêzên leşkerî yên rejîm ve, çûn ser rê û taxên bajêr û xwenîşandan lidarxistin. Di encama xwepêşandana han de di navber gel û hêzên çekdar yên rejîma Kurdkuj ya Komara Îslamî a Îranê şer û pevçûn derketin holê. Di encama pevçûnan de hêzên rejîmê bi guleyan û avêtian gaza rondikrêj êrîş birin ser xelkê û hejmarek ji wan ciwanên biwêr birîndar bûn.

**Li Mehabadê gel dikan û bazar daxistin û girevgirtina giştî hate ragihandin**

**Di encama xwenîşandanên Mehabadê de 35 kes hatin girtin**

**Malbata Şêrko Emînî daxuyanî da: "Azadî hunerek e ku hemû mirovek dikare afirînerê wê be"**


Şehîd Şêrko Emînî

---

## Hevpeyvîna taybet li ser avakirina YXDK Îran bi birêz Kerîm Perwîzî re



**Birêz Kerîm Perwîzî: "YXDK Îranê dixwaze dengê fetisandî yê gişt xwandekarên Kurd ên nava zanîngehên Îranê de bilind bike"**

**R.4**

## Deqa axavtina Sekreterê Giştî yê PDK Îranê, birêz Mistefa Hicrî di konferansa Serbixweyiya Kurd, Demokrasî û Aramiya Herêmê

**PDK Îranê hemû metodên mafê diyarîkirina çarenivîsê û yek ji wan hevgirtina gişt parên Kurdistanê û damezirandina hikûmeteke serbixwe ya Kurdî di Rojhilata Navîn de, bi mafê xwezayî yê neteweya Kurd dizane**

**Rûpla 2**



## Endambûna Turkiyê di YE'ê de li rêya çareserkirina pirsgirêka Kurd derbas dibe



Çareserkirina pirsgirêka Kurd li Turkiyê bandoreke rasterast li ser Rojhilat û Rojavayê Kurdistanê heye....

**(R. 5)**

## Peymannameya Cîhanî ya Mafên Zarokan
(Beşa 2)



Peymannameya Cîhanî ya Mafên Zarokan peymanek navneteweyî ye ku ji bo berevanî û piştevanî kirin ji mafê zarokan hatiye berhev kirin. Ev peymane piştî 10 salan gotûbêj di navbera welatên endamê...

**(R. 6)**

## Nehemîn Festîvala Gelawêjê ya wêjeyî û rewşenbîrî li Silêmaniyê



Nehemîn Festîvala Gelawêjê ya wêjeyî û rewşenbîrî li Silêmaniyê hate lidarxistin û heft rojan dom kir.

**R. 10**

**Evîn Çîçek:**

## Helbest parçeka rihê min e

Helbestvan û nivîskara Kurd, Evîn Çîçek di hevpeyvîneke taybet bi Agirî re:

**"Ez bi helbestan rewş, rastiya welat û neteweya xwe didim naskirin"**

**"Ziman nebe, helbet nabe"**

**R. 7-9**



## BIŞAVTIN

Bişavtin û mehandina nirxên civakê jî bi hema awayî dibe sedema tunekirin û jiholêrakirina çanda civakê. **(R. 10)**



# PDK Îranê hemû metodên mafê diyarîkirina çarenivîsê û yek ji wan hevgirtina gişt parên Kurdistanê û damezirandina hikûmeteke serbixwe ya Kurdî di Rojhilata Navîn de, bi mafê xwezayî yê neteweya Kurd dizane

**Deqa axavtina Sekreterê Giştî yê PDK Îranê, birêz Mistefa Hicrî di konferansa Serbixweyiya Kurd, Demokrasî û Aramiya Herêmê**

**Birêz Serokê Konferansê!**
**Beşdarên hêja!**

Piraniya bîryar û bîrmendên mezin yên cîhanê li ser vê baweriyê ne ku **azadî** gewhera **bûna** mirov e û di heman demê de jî, xuyatirîn tixmê cudaker yê mirov ji hemû rihliberên ser erdê ye. **Azadî** jî tenê çemkeke rût û cuda nine, belkî azadî bi **mafê hilbijartinê** re wateyê peyda dike.

Li ser vê bingehê, mafê diyarîkirina çarenivîsê, peywendiyeke rasterast bi azadî û hilbijartinê re heye. Heke mirovek yan neteweyek ji mafê biryardana qedera xwe bihê bêpar kirin, bi awayekî xwezayî vê çendê diselimîne ku ew mirov yan netewe ku qala wê hate kirin ji **azadî** û **mafê hilbijartinê** hatiye bêpar kirin.

Ev mafe, wate mafê diyarîkirina çarenivîsê di her formeke şeklî de be, hem di biryarnameya Rêxistina Neteweyên Yekbûyî de û hem di Carnameya Gerdûnî a Mafên Mirovan de, îfade pê hatiye kirin û her weha tekez li ser hatiye kirin û wekî mafeke bingehîn hatiye hesibandin. Lewre mafê biryardan li ser çarenivîsê di her metodekê de be, tevî biryara Neteweyên Yekbûyî û Carnameya Cîhanî ya Mafên Mirovan hev digre û tu kes, girûp û dewletek nikare haşayê lê bike. Ji ber ku her cure hewl û tekoşînek bi merema înkar û çavmiqandin ji wî mafê bingehîn, rast tê wateya înkarkirin ji **azadiya** mirov û azadiya hilbijartinê û bi kurtî înkarkirina **mirovbûna** mirov e.

Her wekî em hemû dizanin, gelê Kurdistanê di du qonaxan de- wate di şerê Çaldiranê û şerê yekemîn yê cîhanî de- li gor siyaseteke kolonyalîstî û bê berçavgirtina viyana azad ya neteweya Kurd di navbera çend welatan de hate parve kirin. Lê ew parvekirina na rewa û stemkarane, nekarî viyan û îradeya azadîxwazane ya neteweya Kurd têk bişkîne û gelek nema ku axa parçekirî ya Kurdistanê bû çepera berxwedan û piştevaniya Kurd û çend serhildanên mezin derketin holê û çend tevgerên neteweyî- demokratîk dijî vê stem û zordariyê, orta xebatê coşand û hetanî niha jî ew bizava rewa, berheq û mafxwazane di rastrêya piştgirîya maf û azadiyên neteweya Kurd de her dimeşe û tu asteng û kospekê nekariye gavên Kurdan şil bike û



**Mafê diyarîkirina çarenivîsê di her yek ji form û şeklên wekî: Serxwebûn, Federaliyet û Otonomî de be, mafê sirûştî yê neteweya Kurd e û PDK Îranê ji destpêka avabûnê heta îro, cehd û tekoşîn ji bo wan mafên xwezayî û bingehîn kiriye**

bilerizînin.

Mafê diyarîkirina çarenivîsê di her yek ji form û şeklên wekî: Serxwebûn, Federaliyet û Otonomî de be, mafê sirûştî yê neteweya Kurd e û PDK Îranê ji destpêka avabûnê heta îro, cehd û tekoşîn ji bo wan mafên xwezayî û bingehîn kiriye. PDK Îranê, tu demekê serxwebûna Kurdistanê wekî yek ji şêwazên mafê diyarîkirina çarenivîsê, ne tenê ret nekiriye, belkî bi mafeke xwezayî yê neteweya Kurd di gişt parçeyên Kurdistanê de zaniye. Di vê derheqê de rêberê hertim nemir û şehîd yê PDK Îranê, Dr. Ebdulrehman Qasimlo dibêje:**''Heke rojek ji rojan, Kurdistan bibe welatek serbixwe, ev nahê wateya cudabûnê, belkî hevgirtin e.''**

Lewre PDK Îranê hemû metodên mafê diyarîkirina çarenivîsê û yek ji wan hevgirtina gişt parên Kurdistanê û damezirandina hikûmeteke serbixwe ya Kurdî di Rojhilata Navîn de, bi mafê xwezayî yê neteweya Kurd dizane û cuda ji vê çendê li ser vê bawerê ye, hemû parçeyên Kurdistanê ji heqê avakirina hikûmeteke serbixwe li Bakur, Başûr, Rojhilat û Rojavayê Kurdistanê heye. Lê serbarê baweriya kûr ya PDK Îranê bi wan mafane, hetanî niha vê partiya xebatkar dirûşma serbixweyiya Kurdistanê ne xistiye rojevê. Ne hilgitina vê drûşmê ji aliyê PDK Îranê nahê vê wateyê ku vê partiya xebatkar, serxwebûna Kurdistanê bi mafê netewa Kurd nazane. Belkî ne hilgirtina dirûşmeke wisan ji hêla PDK Îranê ve li gorî fakterên navnetewî, herêmî û hundir û her wiha baldan bi jeopolotîka devera Rojhilata Navîn û Kurdistanê vedigere û ji ber bûna van sedeman PDK Îranê dirûşma serxwebûnê ji bo Kurdistanê bi giştî û nemaze ji bo Kurdistana Îranê bikêrhatî nazane.

PDK Îranê li gor hevkêşeyên hêz û desthilatan di asta navneteweyî û deverê de li ser vê baweriyê ye ku bikêrhatîtirîn dirûşm û mekanîzm ji bo çareserkirina pirsgirêka Kurd di hemû Parçeyên Kurdistanê de, mekanîzm Federalîzma li ser bingeha Coxrafî- Neteweyî di çarçoveya wan welatan e ku Kurdistan di navbera xwe de parve kirine.

Diyarîkirina vê curê çarenivîsê ji bo Kurdan ji aliyekê li gor ceribîna serkevtî ya Federalîzmê di piraniya welatên pêşverû û pirneteweyî de ku hetanî niha birêveçûye û berhemeke hêja û baş di warê bi hev re jiyana netewan di welatekê de ji dinyayê re daye xuya kirin û mafê wekhev ji bo hemû neteweyan misoger kiriye. Ji aliyekî din ceribîna nû ya Kurdistana Îraqê tevî gişt xalên lawaz û bihêz yên wê dikare di pêşerojeke nêzîk de gelek tiştên nû ji me re bide xuya kirin. Me guman di vê çendê de nine ku Federalîzm, serxwebûn yan bi giştî her awayek ji metodên diyarîkirina çarenivîsê, wê demê dikare hêvî û daxwazên gel û takên gel bicî bîne ku li ser bingeha demokrasiyê hatibe ava kirin.

Lewre PDK Îranê her dem li ser vê baweriyê bûye ku bê zeliqîn û cîgirbûna demokrasiyeke rasteqîn, mafên Kurdan misoger û eseh be û heke ew mafane jî bihên misoger kirin tu garantiyek ji bo ne zevtkirina wan maf û azadiyan namîne. Lewre jî, PDK Îranê baweriyeke kûr û xurt bi demokrasiyê heye û di kiryar de jî peya kiriye. Em tu tevgerekê li Kurdistanê de bi bizaveke rizgarîxwazane nazanin ku armancên wê tevgerê, demokrasî nebe û li hundirê tevgerê de jî hewl û cehda peya kirina wê nede.

Şehîdê hertim nemir Dr. Ebdulrehman Qasimlo dibêje:''Me li Kurdistanê û di PDK Îranê de

baweriyeke kûr bi demokrasiyê heye û herweha em bawer in bê misoger bûna azadiyên demokratîk, welatê me nikare wan arîşe û pirsgirêkên aloz çareser bike ku bi destê wan dinalînin. Xebat ji bo demokrasiyê nabe biçe bin bandor û siya xebat ji bo mafên neteweyî yan xebata çînayetiyê''. Ji ber vê çendê erk û wezîfeya her takeke Kurd e ku serbarê xebat û tekoşîn ji bo misogerkirina mafê diyarîkirina çarenivîsê di şeklê Federalîzmê de, ji bo damezrandina hikûmeteke demokratîk di seranserê welatê xwe de jî bixebite, ji ber ku ew Federalîzma ku armanca me ye tevî demokrasiyê hev dikemilînin û hewcehî hev in û tu yek ji wan bê ya din nahê bi cî anîn. Metodek wisan ji hikûmetê ku bikare mafê diyarîkirina çarenivîsa Kurdan berçav bigre û mafên wan bi fermî nas bike, dikare beşeke berfireh ji Rojhilata Navîn ku Kurd tê de dijîn bi devereke aram û biewle bike û îstiqrarê tê de cîgir bike.

**Gelî rêzdaran!**

Her wekî hûn hemû dizanin çendîn sal e ku gelê Kurd di Kurdistana Îraqê de bi qonaxeke hesas û cihê hêviyê derbas dibe û tevgera rizgarîxwaz ya Kurd di vê para Kurdistanê de, kariye bi parek berbiçav ji mafên bingehîn yên xwe bigihîje û bo cara yekemîn bi awayekî yasayî ev maf di qanûna herdemî ya Îraqê de reng veda.

Di encama hilbijartineke azad de, Parlementoya Kurdistanê pêk hat û Kurdan di dariştin û afirandina destûra herdemî ya Îraqê de roleke bibandor lîstin û bi serbilindî ve yek ji serkêşên tevgera rizgarîxwaz a Kurdistanê bû Serok Komarê Îraqê û serokên hêja û jêhatî yê din bû Serokê Herêma Kurdistanê û ji aliyê welatên pêşverû û xwedan biryar yên cîhanê bi fermî bihê pêşwazî kirin. Serokê Komkara



Ereb di Parlementoya Kurdistanê de amade bû û ew Parleman bi parlementoyekî rewa û bijartiya gelê Kurd hesiband. Bê guman gişt ew bûyer û gavên hêja û girîng, bûne cihê hêvî û xweziyên civatên gelê Kurdistanê û tevgera neteweyî-demokratîk ya Kurd di hemû parçeyên Kurdistanê de.

PDK Îranê bi dîtineke cihê hêviyê mêzeyî wan bidestxistinên binirx yên neteweya Kurd dike û em hêvîdar in ku ev ceribandinên girîng ji bo parên din yên Kurdistanê bihên veguhastin û Îraqeke demokratîk ya Federal, bibe mînak û şîretek ji bo tev neteweyên welatên dîktatorlêdayî yên devera Rojhilata Navîn û neteweya Kurd di hemû parçeyên Kurdistanê wekî Lokomotîveke guhertinê ji totalîtarîzm û dîktatoriyê ber bi demokrasî, parastina mafên mirovan û avakirina sîstem û pergalên azad û vekirî di hemû herêma Rojhilata Navîn bixebitin.

Misogerbûn û zeliqîna mafên neteweya Kurd di Kurdistana Îraqê de, çiqas ji dîtingeha me girîng e, em parastina wan bidestxistinan ji bo tevgera rizgarîxwaz ya Kurdistanê du car qedersaztir dizanin, lewre erkê hemû Kurdeke welatparêz û gişt tevgerên demokrasîxwaz ku parêzeriyê ji wan bidestketinên binirx bike û cehda pêşxistina wan bide. Herwiha ev erkê dîrokî jî dikeve ser milê hikûmeta herêma Kurdistanê û rêberiya tevgera vê beşê ku bibe piştevan û alîkar û hayderê bizava neteweyî- demokratîk ya Kurd di hemû parçeyên Kurdistanê de û ev erkê xwe yê dîrokî bi awayekî baş bimeşîne.

Bi vê hêviyê ku em hemû alî di vê dem û rewşa hesas de ku bi ser me de derbas dibe erk û berpirsiyariyên xwe bi hişyarî û hûrî birêve bibin.

# Pirtûkek nû derheq terora Dr. Qasimlo




**Îskort berev Tehranê** (Dr. Qasimlo çawa ber bi mirinê hate kişandin), Pirtûkek e ku Dr. Pîter Pîliç, kesayetiyê siyasî û hiqûqî yê Otrîşî ser bi Partiya Keskan ya wî welatî nivîsandiye. Ev pirtûk di sala 1997'an de bi zimanê Almanî hatiye nivîsandin û Hesen Eyûbzade bo ser zimanê Kurdî wergerandiye. Di destpêka pirtûkê de zanyariyên hûr yên pêş û paş îdam – terora Dr. Qasimlo û hevalên wî ku komploya siyasetvan û rayedarên dewleta Otrîşê ji bo binpêkirina qanûna welatê wan bû eşkere hate kirin û di naveroka vê pirtûkê de cî girtine.

Nivîskarê vê pirtûkê bi nivîsîna xwe sîstema qanûnî û siyasetvanên du partiyên desthilatdar û dezgehên welatê Otrîşê rexne dike û rastiyên der barê vê terora cinayetkarane û hov eşkere û zelal dike. Bi giştî em dikarin bibêjin ku pirtûk parek ji cinayeteke hov ya navdewletî ku dijî Kurdan meşiya ye, dixe rojevê.

Wergerandina çapa Kurdî ya vê pirtûkê vê dawiyê li Kurdistanê hatiye belav kirin. Cih û dema çapê li ser pirtûkê nehatiye nivîsandin. Pirtûk ji 312 rûpelan pêk tê. Sernivîsên basên pirtûkê evên jêr in:

Destpêka wergêrê vê pirtûkê, destpêka nivîskarê vê pirtûkê, li Kurdistanê, gelê bê piştevan, Ebdulrehman Qasimlo, topa leyîzê di herêmê de, çirayê kesk, mirovkuj, ji Helebçeyê re ber bi Viyenê, sêzdehê Yola 1989'an, Îskort berev Tehranê, hikûmeta qanûn û sîstema Otrîşê, dostatiya 1989 – 1997, dezûya sor.

**Têbînî: Ji bo amadekirina vê nivîsarê ji destpêka pirtûkê mifah hatiye standin.**

# Rojnamevaneke Kurd di girtîgeha Merîwanê de devê xwe dirû

Rojnamevanê Kurd Madih Ehmedî ku seba aloziyên mehên borî yên bajarê Kurdistanê hatibû girtin û piştre ji girtîgeha Merîwanê re hatibû şandin. Wî ji bo xuya kirina nerazîbûnê ji biryara girtina xwe dest dabû gireva birçîbûnê û niha jî devê xwe dirûye.



Hêjayî gotinê ye, xizmeke nêzîk yê Madih Ehmedî di hevpeyvîneke de tevî ajansa ''Press News Îran'', da zanîn ku rojnamevanê Kurd di girtîgehê de bi rewşeke gelek nebaş re rûbirû ye û jiyana wî di xeterê de ye.

**Birêz Kreîm Perwîzî:**

# "YXDK Îranê dixwaze dengê fetisandî yê gişt xwandekarên Kurd di nava zanîngehên Îranê de bilind bike û xwandekarên azadîxwaz ên Kurd bi rêxistin û nasnameya xwe ya taybetî ve, di qada xebat û çalakiyên xwandekarî de xuya bikin"

**Xwandevanên hêja yên AGIRÎ, demekê berî niha Yekîtiya Xwandekarên Demokrat a Kurdistana Îranê hate ava kirin. Lewma me bi hewce zanî ku em li ser girîngiya avabûn û armancên vê rêxistinê û herwiha xebat û çalakiyên vê yekîtiyê û herwiha helwestên wêderheq doza siyasî, civakî û pirsgirêkên xwandekarên Kurd di Îrtanê de, bi birêz Kerîm Perwîzî, Sekreterê Giştî yê vê rêxistinê re hevpeyvîneke pêk bînin ku li jêr pêşkêşî we tê kirin.**

**Hevpeyvîn: Dara NATIQ**



**Rêzdar Kerîm Perwîzî, ji kerema xwe di destpêkê de Yekîtiya Xwandekarên Demokrat a Kurdistana Îranê pênase bike?**

YXDK Îranê rêxistineke xwandekarî ye ku dixwaze xwandekarên Kurd yên zanîngehên Îranê û xwandekarên Kurdistana Îranê, di jêr çetra xwe de kom bike û bibe çetra hevbeş ya xwandekarên azadîxwaz û xebatkar ên Kurd bona gehgîştin bi armancên xwe.

**Hewcehî û sedemên pêkanîna vê rêxistinê çi bûn?**

Tevgera Xwandekarî li du şêwe desthilat û sîstemên cur be cur de, du cure helwêstên cuda digire. Heke sîstema siyasî û civakî a welatekê demokratîk be, tevgera xwandekarî jî di vê sîstemê de helwêsteke rexnergir dibe, rexnegir bi vê wateyê ku nexwaze sîstemê biguhere, an jî guherînek bingehî tê de pêk bihê, belkî bi çavekî tûj û bi hûrî xalên jar û xalên hêzdar ên civakê dibîne û wan xala destnîşan diket û bas diket, lê di welatekê de ku desthilateke dîktatorî bi ser civakê de zal e, êdî ew tevgera rexnegir nîne, belkî pêkhatşikên e û heya wî çaxî ku guherîneke bingehî di sîstema siyasî û civakî de pêk nehê, dê her dirêjiyê bide xebata xwe ya roşengeriyê.

Di Îrana li jêr desthilata reş û biyom a Welayeta Feqîh de, xwezayî ye ku ev bizava pêkhatşikên be, lê desthilata melayan pêşiya her cure rêxistineke rastîn a xwandekaran digirt û hinek rêxistinên destçêkirî û girêdayî bi raman xwe ava kirin.

Ji alîkî din ve, desthilat û piştî wê jî rêxistinên xwandekarî yên girêdayî bi desthilatê, çavê wan doza sereke a Îranê, ku pirsgirêka neteweyî ye nedidît û haşa ji maf û hebûna neteweyan dikir.

Li ber wan sedeman hewce bû ku rêxistineke rastîn a girêdayî bi desthilatê hebe ku xwandekarên Kurd li dora xwe bicivîne û ev xwandekarane bi şansa taybetî a xwe bêne nava qada çalakiyên xwandekarî.

**Armanca sereke a YXDK Îranê çi ye?**

Armanca sereke ya YXDK Îranê, pêkanîna organîzasiyonekê ye bona vê çendê ku xwandekarên xebatkar û azadîxwaz ên Kurd tê de xwe birê bixin bona gihîştina bi hinek armancên wekî:

- Diyarbûna rola xwandekarên Kurd di bizava xwendekarî ya seranserî Îranê.
- Piştgîrî û beşdariya çalakane di tevgera neteweyî-demokratî a gelê Kurd de.
- Pêkanîna hevbîrî û harîkariya piratîk ya xwandekarên Kurd û tev xwandekarên neteweyên din ên Îranê.
- Beşdarîkirin di xebat ji bo avakirina sîstemeke Federal di Îranê de.
- Cehd û hewildan ji bo pêkanîna têkilî û diyaloga bingehdar bi rêxistinên xwandekarî ên parên din yên Kurdistanê re.

**YXDK Îranê heya çi radeyekê dikare bersîvderê xwestek û daxwaziyên îro rojê yên xwandekarên Kurd di Kurdistana Îranê de be?**

Di salên derbasbûyî de bi sedema zêdebûna rêjeya wergirtina ciwanên Kurd di zanîngehan de û sexmeratî hinek vekirîbûnê di rewşa siyasî de, liv û çalakiyên xwandekarên Kurd rû li zêdebûnê kir.

Xwandekarên Kurd yên di nava zanîngehên Îranê de ku di rêxistinên destçêkirî yên xwandekarî de, çi bersîvek bi pirsyarên wan nedihate dan, cehd dikirin ku bi çalakiyên teybet bi xwe, wekî derkirina kovarên Kurdî, avakirina Şêwrên Xwandekarî yên Kurdan û... bi nasnameya taybetî ya xwe ve bihên nava biyava xebata xwandekarî û dengê xwe bigehînin xwandekarên din û xelkê, lê van cure çalakiyan bi destêwerdana rejîmê û zext û givaş xistina li ser xwandekaran nekarî ev hinde geşe biket, heta ku bikaribe hemû xwandekarên Kurd yên sertaserî Îranê li jêr çetrekê de li hev bicivîne.

YXDK Îranê dixwaze dengê fetisandî yê gişt xwandekarên Kurd di nava zanîngehên Îranê de bilind bike û xwandekarên azadîxwaz ên Kurd bi rêxistin û nasnameya xwe ya taybetî ve, di qada xebat û çalakiyên xwandekarî de xuya bikin.

**Bi raya we erkê xwandekarên Kurd di qonaxa niha ya bizava rizgarîxwaziya gelê Kurd de divêt çawa be?**

Bizava xwandekarî di rejîmeke dîktatorî a qorixçî de xwediyê girîngiyeke bingehîn e, ji ber ku ev bizava gişt damezraw û çavkaniyên kontirol û dîsîplîna destvehatî ji aliyê rejîmê ve dixe jêr gilî û gazindeyên tund û radîkalane. Her wekî **Hana Artin** dibêje: "Ya ku takekesên vê nifşê li her derê ji hêla navxweyî ve cuda diket, gernasî û vîna ciyê heyrîmanê ye ji bo egera pêkanîna guherînan". Erkê li ser milê xwandekaran û bizava xwandekarî ye ku hemû hewlên dîktatoran bi merema dûrxistina xelkê ji siyasetê di biyavên giştî ên civakê de pûç bikin.

Di vê qonaxa hestyar û dîrokî ya bizava rizgarîxwaziya gelê Kurd de, erkê ser milê xwandekarên azadîxwaz û demokrat ên Kurd e ku bi hest bi berpirsyariya dîrokî a xwe, palder û texa pêşeng a xebata neteweyî-demokratîk a gelê Kurd bin û ji bo gihîştin bi armancên neteweyî û demokratîk ên gelê Kurd, bi rêxistina xwe mil bi milê tex û qatên din yên civakê xebat û tekoşînê bimeşînin.

**Dîtingeha YXDK Îranê li hember xebata neteweyî-demokratîk a gelê Kurd di Kurdistana Îranê de çi ye?**

Em dikarin bizava rizgarîxwaz ya gelê Kurd li Kurdistana Îranê bi du qonaxan parve bikin. Qonaxa yekem, em dikarin bi qonaxa serhildan û rabûna gelê Kurd pênase bikin ku li hember zilm û zora desthilata navendî de serî hilda. Taybetmendiya berçav ya vê qonaxê eva ye ku bizava rizgarîxwaziyê di vê qonaxê de bizaveke dijkiryar û berengarî ye.

Qonaxa duyemîn a vê bizavê bi avakirina komeleya **JK**’ê û hatina hinek ronakbîran bo nava qada xebatê, dest pê dike. Bi avakirina partiyeke serdemiyane û nûjen wekî PDK Îranê û piştî wê Komara Demokratîk a Kurdistanê di sala 1945’an de, bizava rizgarîxwaz a gelê Kurd, şêweya bizaveke neteweyî-demokratî bi xwe ve digire. Ku cuda ji bersîvdana bi xwestekên neteweyî li pey bersîvdana bi xwastekên sereke û bingehîn yên mirov bi giştî û mirovê Kurd bi taybetî digere, ku xwe li şêweya xebat ji bo avakirina sîstemeke demokratîk di civakê de nîşan dide.

Di qonaxa xebata neteweyî-demokratîk de ye ku ev bizava diyardeyek jê çê dibe bi navê Bizava Ronakbîriya Kurd û di rastî de bizava ronakbîrî ji xebata neteweyî-demokratîk a gel ve çavkanî digire. Rêberên bizava ronakbîriya Kurd, xwendevanên Kurd û ew xebatkarane bûn ku ji aliyekê ve rêberiya xebata neteweyî-demokratîk a gelê Kurd dikirin, pêşengê xebat û şoreşê bûn, li pêşiya refa xebatkarên azadîxwaz de bûn û ji aliyekî din ve dixebitîn da ku çemk û wateyên modern di nava civakê de belav bikin.

Di nava vê bizavê de, navê mamostayê demokrasiyê, şehîdê hertim nemir Dr. Qasimlo mîna stêreke pir tîrêj di esmanê buhagiraniyên modern û bilind û mirovahiyê de dibiriqe.

**Xebat û çalakiyên we di pêşerojê de wê çi bin?**

Hewla YXDK Îranê eva ye ku ji rêya rêxistin û organîzekirinê ve, ew erkên ku bername û peyrewa wê diyrî kiriye, encam bide.

# Endambûna Turkiyê di YE’ê de li rêya çareserkirina pirsgirêka Kurd derbas dibe

**Sarîna**



Roja 9’ê Novambera 2005’an, komîsyona berfirehkirina YE’ê, rapora reform û şert û mercên destpêkî yên endambûna Turkiyê di vê Yekîtiyê de naskirî bi gelaleya pêşxistina Turkiyê berhev kir û bi merema pejirandinê xiste pêşiya rayedar û desthilatdarên wî welatî. Di wê raporê de ku di hemû dezgehên ragihandin û çapemeniya Turkiyê de hatiye weşandin, di hemû warên siyasî, aborî, civakî û çandî de, raspardeyên hewce ji dewleta Turkiyê re hatne dayîn, bona vê çendê ku di heyamê 2 salên pêşîn de wekî mercek ji bo domandina gotûbêjên pirosesa endambûn di vê yekîtiyê de wan cî bi cî bike. Bi gotina Olî Rehn, serokê komîsyona berfirehkirina Yekîtiya Ewropayê di roja 10’ê Novambera 2005’an de, naveroka vê gelaleyê ku pêk tê ji hin reform û darêtina pîlanên pêşketî, Turkiyê ji bo vê Yekîtiyê nêzîk dike û wî welatî di hemû warekê de pêş dixe.

Di vê navberê de serbarê vê ku Elî Babacan, Wezîrê Aboriyê û berpirsiyarê gotûbêjên endambûna Turkiyê cehd û tekoşîn kir çend xalên wê gelaleyê kêm yan jî aliyê kêm biguhere, lê komîsyona Ewropayê izn neda wî û piranî wekî ku xwe dixwast pesend kir û pêşkêşî dewleta Turkiyê kir. Eva ku di vê gelaleyê pir girîng e û bûye sedema dubendî û natebahiyê di navbera Turkiyê û Yekîtiya Ewropayê de, eva ye ku di derheq Kurdan de hatiye û bi eşkere dewleta Turkiyê neçar dike ku mafên çandî yê Kurdan bi fermî nas bike û di qanûna bingehîn ya welat de zimanê Kurdî wekî duyemîn zimanê fermî yê Turkiyê bihê cihdan û xwendin û nivîsandina bi Kurdî azad bibe û welatiyên Kurd yên Turkiyê bikarin di çarçoveya wî welatî de xwediyê hemû van mafan bin ku di Danezana Cîhanî a Mafên Mirovan de hatiye. Bi wateyeke din divêt dewlet van mafan bide bi Kurdan ku di çarçoveya Turkiyê de Otonomiya siyasî û çandî hebin.

Ev madeya pêşxistina Turkiyê zû kete ber rexneya dewletê û bi taybetî dezgeha Ewlekarî ya neteweyî û hêzên nasonalîst û Kemalîstî yên wî welatî û li hember de helwest girtin. Wan dan xuya kirin ku ev xala ku Kurd wekî kêmanî hesibandiye û dijî benda **A** ya madeya duyem a ewlekariya giştî ya welat e û gefê ji yekîtiya axa Turkiyê dike. Cemîl Çîçek, Wezîrê Dadvaniyê û berdevkê dewletê, tevî nîşandana nerazîbûna xwe, ev yek wekî zulmeke Ewropayê li welatê xwe nav bir. Rêxistinên Pan Turkîst jî ev cehda Rojava ji bo parvekirina Turkiyê hesibandin û dijberiya xwe tevî de dane xuya kirin. Her çend ku wiha tê çavnihêrî kirin ku bîr û ramanên Kemalîstiyan iznê nadin ku Turkiye vê benda gelaleya daxwazkirî a Ewropa wajo bike, lê bi baldan bi wê ku ji bilî cîbicî kirina hemû madeyên vê gelaleyê, xewnên 40 saliya derbasbûyî yên desthilatdarên wî welatî ji bo enbambûna Yekîtiya Ewropayê misoger nebe, bi eşkere em dikarin bibêjin ku Turkiyê tu rêyek din ji bilî pejirandina van mercane nine ku di gelaleya navhatî de qala wan hatiye kirin. Eva jî di gotinên roja 11'ê Novambera 2005’an yê Receb Teyîb Erdoxan, Serok Wezîrê Turkiyê bi başî xuya dibe ku got: “Welatê wî biryar daye ku gavên xwe ber bi Yekîtiya Ewropayê gurtir û xurtir bike û heke jî nekarî arîşe û pirsgirêkên ser rêya gelaleya pêşketî ji nav bibe, dê alîkariyê ji Ewropayê werbigire”. Di vê navberê de jî tiştek xwezayî ye ku dewleta Turkiyê ji bo berhevkirina mêjîyê Nasolîstên kevneperest û nermkirina ramanên Kemalîstan, hêdî hêdî gava hilbigire. Ev gavane jî li ser bingeha bername û pilanên darêtî hatine diyarî kirin:

Yekem;Turkiyê bi vê mercê ve amade bûye ku daxwaza Ewropayê derheq pirsa Kurd di vî welatî de çareser bike ku bi tu terzan rûniştina digel PKK’ê pêk neîne û bi hevkariya Rojavayê wekî rêxistinekî terorîstî tepeser bike û di hevkêşeyên siyasî yên welat de jinav bibe ku eva jî di gotar û ragihandinên Turkiyeyê de bi eşkere bas jê tê kirin.

Di vê derheqê de Turkiyê bi hevkariya Amerîkayê hewleke navneteweyî daye heya ku pirsa PKK’ê û mana wan di Kurdistana Başûr de yek alî bike. Amerîka hevkariya Turkiyayê dike. Nansî Mek Danî, parêzerê berjewendiyên Amerîka li Enqere, di konfernsa xwe ya di meha Oktobra 2005’an, de, bi eşkere ev meseleya anî ziman ku Amerîka bi têdîtinên xwe derheq PKK’ê piştgiriyê ji Turkiyê dike û li hember vê piştgiriyê de jî Enqere piştrast kiriye ku merca Yekîtiya Ewropayê ji bo çareseriya demokratîk a pirsgirêka Kurd di çarçoveya wî welatî de çareser bike.

Li dîtingeha Amerîkayê ve zirûfa nû ya piştî 11’ê Septembera 2000'an, di devera Rojhilata Navîn de, Kurd xistiye eniya berjewendiyên wî welatî û nemaze di Turkiyê de jî ku hevalbendê wê ne. Çareseriya pirsgirêka Kurd dikare alîkariyê bi pêşdeçûna qazanc û berjewendiyên wî bike. Dîtingeha nû ya Amerîka der barê Kurdan, bûye hegera nigeraniya Turkiyê û bûye sebebek bandordar ku desthilatdarên Turkiyê ji bo selimandina mafê Kurdan hay bide. Di vê derheqê de Turkiyê dijber tevî ramanên Amerîkayê heye û çend caran jî bi fermî aniye ziman ku Waşîngton wekî hevalbendekê der barê Kurdan berevajî berê, dostane nalive û dijî berjewendiyên Turkiyê gavan hildigire.

Serbarê van natebahî û dijberiyane jî, di ragihandinên Turkiyê û Amerîkayê de wiha tê dîtin ku li hevkêşeya nû ya Amerîka û Turkiyê ku li dor Kurdan li ser de sax bûne, cihê PKK’ê wek sedemek kartêker ji bo çareserkirina pirsgirêka Kurd di Kurdistana Bakur de nehatiye vekirin. Serok Wezîrê Turkiyê, Erdoxan di seredana xwe ya 2 mehan berî niha ji bo herêmên Kurdistana Bakur û di çend rê û resm û konferansên çapemeniyê de, piştî sorbûn li ser hewcehiya tepeseriya PKK’ê wekî rêxistineke terorîstî, qala vê çendê kir ku li Turkiyê pirsa Kurd heye û dewlet jî bi micitî di cehda çareserkirina wê de ye.

Duyem pîlana diyarîkirî a dewleta Turkiyê eva ye ku hevdem tevî bêhêz kirina PKK’ê, meydanê dide van kesayetî û rêxistinên Kurd ku dûr in ji bazneya PKK’ê, Nûçegihaniya dewleta Anatolî û bi giştî ragihandina Turkiyê, bi fermî dîtin û nêrînên Leyla Zana kesayetiya Kurd û nûnerê berê yê parlemanê, piştî serbestberbûn ji 10 salan girtinê ku niha Civata Tevgera Demokratîk ava kiriye, diweşînin û bi giştî cehd û hewlê didin ku pirsgirêka Kurd ji rêya pêvajoyeke cuda ji PKK’ê çareser bikin.

Eva ku dewleta Turkiyê heya çi qasekê di vê siyasetê de (siyaseta tepeser kirina PKK) serkevtî dibe, ron û eşkere nine. Ji ber wê çendê ku PKK di Kurdistana Bakur de xwediyê endam û alîgirên zaf e û ji nav birina wê jî kerek wiha hêsan û biçûk nine û her terze hevkariyeke navneteweyî jî bi dijî wê (PKK), pirsê aloztir dike. Lê eva ku dewleta Turkiyê neçar hatiye kirin ku fikirê ji çareseriya pirsa Kurdên Bakur bike, girîngiyeke taybet heye û weke xaleke guherînê ya dîrokî li ser pirsa neteweyî a Kurd di Kurdistana Bakur de tê hesibandin. Di vê navberê de PKK dikare roleke nû bilîze û hevdem digel guhertinên Turkiyê, siyaseteke nû û bandordar bîne holê û çavekê bi siyaseta girêdayî bûna pirsa Kurd bi hepsî kirina birêz Ebdulah Ocalan, Serokê PKK’ê de bigêrin. Ne tenê PKK belkî divêt hemû hêzên Bakurê Kurdistanê bi giştî handerek ji bo dewleta Turkiyê bin ji bo ku gavên xwe ber bi Ewropa bileztir bike.

Baldan bi ser vê pirsê pir girîng e ku rêya çûna Turkiyê bo nav Yekîtiya Ewropayê girêdayî bi çareserkirina pirsa Kurd be û paşdekişan ji çareseriya pirsa Kurd jî bi wateya dest hilgirtin ji endambûna Yekîtiya Ewropayê ye. Niha bo cara yekem di dîroka 82 salî a Komara Turkiyê de berjewendiyên Kurdistana Bakur û berjewendiyên Turkiyê girêdayî hev in. Li gor vê yekê şaşiyeke dîrokî dibe ger ku azadîxwazên Kurd yên Bakur cuda jii pêvajoya endambûna Turkiyê di vê Yekîtiyê de gavan hil bigirin. Vir de divêt bihê gotin ku hewlên Turkiyê ji bo çareserkirina pirsgirêka Kurd di çarçoveya wî welatî de zor micidtir ji wê ye ku Turk bixwazin jêst û rûçikê çareserkirina pirsa Kurd bi xwe bigrin. Ji ber vê ku li gor gelaleya naskirî bi pêşxistina Turkiyayê, divêt heyeta Komîsyona pêşdebirin û berfirehkirina Yekîtiya Ewropayê ji nêzîk ve zêrevaniyê naveroka reforman ji bo çareserkirina pirsa neteweya Kurd di Turkiyê de bike û bi rast bizane û pêwendiyê tevî Kurdan de bike.

Ev cehd û tekoşînên Turkiyê ji bo çareserkirina pirsgirêka Kurd, welatek ku heya çend salan berî niha gotina peyva Kurd sûç û tawan bû, bêguman dê bandora rasterast li ser Rojava û Rojhilatê Kurdistanê de bike. Demekê ku Kurd li Rojhilat û Rojavayê Kurdistanê bibin cîranê YE’ê, gelek baştir dikare dengê heqxwaziya xwe bilind bike û piştgirî û alîkariyên zêdetir ji bo çareserkirina pirsgirêka netweyî û mirovî ya xwe rabikişîne, bi mercekê ku heta wê demê pirsgirêka kurd di wan parên Kurdistanê de bi vî awayî mabin!.

# Peymannameya Cîhanî ya Mafên Zarokan

**Beşa 2**

***Pêşgîriya ji veguhastina neyasayî a zarokan***

11) Dewlet divêt nehêlin ku dê û bav an jî kesên din bi awayekî neyasayî zarokan bişîne welatên din.

***Azadiya raderbirîna zarokan***

12) Zarokan mafê vê yekê hene li derbarê ewa ku girêdayî bi jiyana wan e, bi azadî bîr û raya xwe eyan bikin.

***Azadiya eyan kirinê ya zarokan***

13) Zarokan mafê vê yekê heye ku bîr û raya xwe bidin xuyakirin û bêy baldana bi tixûban zanyariyan bi destve bînin.

***Azadiya fikirîn û meseb***

14) Dewlet divêt rêz û hurmetê ji azadiya fikirkirin û mesebê ya zarokan û mafê rênimayiya zarokan ji aliyê dê û bavê wan ve bigirin.

***Azadiya civakî***

15) Zarokan mafê vê yekê hene ku bi hev re têkiliyan çê bikin û civatan pêk bînin.

***Parastina hurmeta zarokan***

16) Kar û barên taybetî, malbatî û nivîsandinên wan divêt li hember her cure bêhurmetiyekî de bêne parastin.

***Dest pêregihiştina bi zanyariyên hewce***

17) Dewlet divêt îmkana destpêregihiştina zarokan bi zanyariyên hewce desteber bikin û li hember zanyariyên xwedîzirar de wan biparêzin.

***Berpirsiyariya dê û bavan***

18) Dê û bavan li mezinkirin û perwerdekirina zarokan de berpirsiyariyeke hevbeş hene û dewlet jî di vî warî de divêt hevkariya wan biket.

***Nehêlana riftara xirap bi zarokan re***

19) Erkê ser milê dewletê ye ku li hember her cure riftareke nebaş ya dê û bavan, an jî serperestan bi zarokan re, zarokan biparêzin û bona pêşgirtina ji her cure mifahwergirtineke xirap ji zarokan, kiryarên hewce yên civakî encam bidin.

***Zarokên bê xudan(bê serperest)***

20) Dewlet divên hevkariya zarokên bê xudan bikin û ciyekî baş ji wan re diyarî bikin.

***Qebûlkirina zarokên bê serperest bi zaroktiya xwe***

21) Di wan welatan de ku nizama xwedîkirina zarokên bê serperest heye, divêt ev kar li gor agehdariya berpirsyarên hêja û kêrhatî di vî warî de û li gor qazancên zarok bê encam dan.

***Zarokên koçber***

22) Dewlet divêt bi hevkariya saziyên kêrhatî di vî warî de, zarokên penaber an jî yên ku dixwazin bibin penaber, biparêze.

***Wergeran: Şehab Xalidî***

**Helbestvana Kurd Evîn Çîçek:**

# “Helbestvan bi nivîsandina helbestan ziman li tehlîka windabûyînê, jarbûyînê dûr digire, diparêze, dewlemend dike, dixemlîne”

**Beşa 1**

**Evîn Çîçek yek ji Jinên rewşenbîr, xwedî pênûs ya Kurd e ku kariye di warê helbest û lêkolînan de gelek xizmetê bi ziman û wêjeya Kurdî bike. Ew di raman û nêrînên xwe de gelek dewlemend e û bi kûrî û hûrî li ser helbestê û rewşa jinên Kurd difikre û wan tîne zimên. Di vê derheqê de me bi Evînê re hevpeyvînek çê kir ku li du beşan di Agirî de pêşkêşî we tê kirin.**

**Hevpeyvîn: Azad Kurdî**



**Dixwazim di destpêkê de xwendevanan bi Evîn Çîçekê re bidim nasandin?**

Ez li sala 1961’an li herêma Qoçgîrî’yê ji dayîk bûme. Ji dema Komara cumuriyeta Turkan de herêm bi ser sê bajaran hatiye belav kirin. Ew bajar Sêwaz, Erzincan û Dêrsim in. Navê navçê bi Kurmancî ***Çît*** e. Turkan kiriye **Îmranlî**.

Gundê min pişta xwe daye Çiyayê Çengeliyê. Ew çiya ji bo gelê herêmê pîroz e. li serî de, di 40 çaviyan de av diherikî. Kurdên ku Ola Zerdeşt takîb dikin nav demê de, hin guhertin jî li baweriyên wan çêbûne, niyazên xwe li vî çiyayî dikin. Hemû dicivin û gora ola xwe pêwîstiyan pêk tînin. Ez di zaroktiya xwe de tevlî îbadetên, niyazên vî çiyayî bûme. Li herêmê çavikên avan, dar û çiya pîroz in. Kurmanc naçin ciyên biyanî. Olên (dînên) biyanî qebûl nakin. Bi teybetî di zivistanê û meha Adarê de kom civatên xwe girê didin.

Min li gundê xwe dest bi dibistana destpêkî kir. Kom û kuflet (malbat) bi sedemên aboriyê koçî bajarê Turkiyê, Stenbolê kirin. Min sinifa duyemîn û hemû sinifên din li wî bajarî xwendin. Zanîngeha Marmarê, beşa zanistî ya Aborî û Rêvebiriya rêxistinan qedand. Salekê jî min teybetî domî qursa zimanê Îngîlîzî kir. Salên 1998-1999 jî li Swîsrayê, li zanîngeha Fribourgê fêrî zimanê Fransizî bûm.

Jiyana min a karê (şixul); dema min di sala 1980’de lîse (kolej) bi dawî kir, dest bi kar kir. Min îdeolojiya çep diparast. Loma bi zanabûn xwest sinifa karker nas bikim. Li atwelyeyên konfeksiyonan de bûm karker. Hem durîn hînkir, hem jî jiyana karkertiyê nêzîk ve naskir.....

Siyaset; Ji aliyê din ve têkiliya min bi netevperestên Kurd her pêş diket, rindtir dibû. Ez fêrî siyasetê dibûm û min dîroka me ya rast hîn dikir. Cunta 12’ê Îlona 1980’an hatibû ser text û sivîl ji îqtîdarê dûr kiribûn. Gelek kes top dikirin. Zilm li wan dikirin. Hin davêtin girtîgehan, hin dikuştin. %80 Kurd, bi teybetî Kurdên Elevî-Zerdûştî digirtin bin çavan û zilm li wan dikirin. Kurdên welatparêz li bajarê Stenbolê jî danî hev. Di meha Şibata sala 1981’an de, ez jî hatim girtin. Du mehan di oda, xaniyê zilmê de mam. Du mehan ez bûm şahîdê zilmê û qurbana zilmê. Paşê hatim girtin. 6 mehan jî di girtîgehên leşkerî de mam.

Di dema hepsê de derketim, hatim berdan, min dest bi zanîngehê kir. Hem dixebitiyam, hem jî dixwand. Di sala 1983’an de bi Kurdekî herêma Botan’ê re zewiciyam. Di 1985’an de min zanîngeh qedand. Di wê navberê de min dest bi hînbûna zimanê biyanî kir. Sala 1986’an bûm dayîk. Lawê min Hozan Zîlan hat dinê. Dawiya 1990’an da jî lawê min yê din Dêrsim Şiyar bû.

Min di 1986’an de biryar girt û vegeriyam Kurdistanê. Li bajarê Sêrtê dest bi jiyanê kir. Tengasiya min a herî mezin ziman bû. Min devokê heremê qet fêm nedikir. Li Kurmanciya Qoçgîrî’yê gelek dûr û cuda bû. Min herêma xwe jî bi zêdebûn bîr kiribû. Di nav demê de hewl da û hindik, hindik (hêd, hêdî) pêşve çûm, ser ketim. Bi rehetî bi milleta xwe ve têkilî, danûstandin daynan û pêşve birin.

1989’an da min beş, pisporî guherand. Dest bi rojnamevaniyê kir. Çima? Di navça bajarê Sêrtê de neteweyek din niştecî ne. Ji wan re dibêjin Ereb. Bi eslê xwe Erebin mi, Cuhîne mi, Asûrîne mi? Nizanim. Ew jî nizanin. Taybetiya wî gelî ew e; alîkarê, alîgirê Komara Turkiyê ne. Ew bajarî, Kurd jî gundî ne. Komarê bi projeyên teybet nehiştiye Kurd bibin bajarî. Guhertinên civaknasî pêk bên. Şerê azadiyê dom dikir. Kurdan zilm didît. Gund dihatin şewitandin. Kes tunebû ku binivîsîne. Loma min karê xwe berda û dest bi rojnemevaniyê kir.

Di 1988’an de me Komela Mafê Mirovan beşa bajarê Sêrtê ava kir. Ez û hin hevalên mêr bûne rêvebir. Sala 1990-1992’an jî bûm seroka vê komelê. Di sala 1990’an da, rêxistina navneteweyî, Helsinki Watch (HRW) (Komiya Helsinkî ya Çavdêriyê) Xeleta Parastina Mafên Mirovan da min.

Me Partiya Ked ya Gel li bajêr ava kir. Min di berpirsiyariyê de cîh girt. Bûm rêvebir. Ew partî ji hêla dozgeriyê ve hat girtin.

Sala 1993’an de çûm Başûrê Kurdistanê. Sê meh û nîv li başûr mam. 3 meh li kampa PKK’ê ya Zelê derbas bû. Min li wê derê du lêkolîn kirin. "Şer û encamên şer ser mirovan. Sosyalîzasyonên Kurdan û encamen sosyalîzasyonan li ser şervanên Kurd", "PKK de Huqik", di Payîza 1993’an de dest bi pirtûka, lêkolîna "Herekata rizgariya netewî ya Qoçgîrî’yê, dema şerê yekemîn li cîhanê" kir. Dozgerên Komara Turkiyê xwestin min bavêjin hepsê. Ez bê dil, bê xwestin derketim derveyî welat. Ji Mijdara 1993’an vir ve li sirgûnê, bi her du zarokên xwe ve bi hev re dijîm.

Ez wekî nivîskar bi teybetî li ser lêkolînan disekinim. Li sirgûnê min rewşa Kurdan lîkolîn kir, hin jî dikim. Li ser wê mijarê de min çar pirtûk amade kirin.

**Bi giştî pênaseya te ji Helbestê çi ye?**

Bi helbestan rewş, rastiya welat û neteweya xwe didim naskirin. Di hemû helbestên min de welatê min, milletê min, evînên, êşên, kêfxweşiyên wan û yên min hene. Her helbesta min wekî mijara şêr, axînan-keseran bi hestanî li xwe bar dike. Ez ji hêla netewe û welatê xwe têm mijandin, xwedî kirin. Helbest parçeka rihê min e. Qîrîna bedena min ya çavdêr û hestên min e. Çiqas neteweyî ye, weqes jî navneteweyî, cîhanî ye.

Bê xwestin û bê biryara me welatê me hatiye qelişandin, parçekirin. Zimanê dayîkê qedexe ye. Ez dayîk im û bi her du zaroyên xwe ve li sirgûne bi hesreta millet û welatê xwe dijîm. Di xewnan de li welat digerim. Berê helbesta min li welatê min e. Nikare xwe vegerîne alîkî din. Ew wek tablokê, min, me nîşan dide. Navnîşan naguhere. Ne mimkun e.

Ku mînak bidim ; lawê min Dêrsim Şiyar, rojekê dendikê xuxê anî û got: *"Anê, dayê, dadê, ez dixwazim viyan bajom. Bila darekî min jî çêbî. Ka kuderê çal kim? "* Em penaber bûn, metrok jî herda me tune bû. Azadiya me tunebû ku wê dendikê bajonê. Ax, xalî ya me nebû. Navê me ***“biyanî bû”***. Me nekariye wê dendikê bajon. Li gundê min jî zevî û baxçeyên me bê xwedî mabûn. Em bi hev ra çûn dora nahalekê. Wî ji çûçikan re nihêrî û pirsên balkêş, dilşewat pirsiyan. Dixwast teybetiyên çûçikên Kurdistanê fêr be. Ser pirsên, xwestinên lawê xwe min *“Çûçika zer“* nivîsand. Rewşa çûçikên Swîsrayê û yên Kurdistanê dan berhev. Dagîrker çawa û bi çi armancî daristanên me dişewitînin, min di vê helbestê de armanc-nêzîkbûyîn anîn ziman, tasvîr kirin.

Çûçik azad, ez penaber bûm.

Hêlîna wê hebû. Min herd tunebû ku dendikekî daynim.

Ew dor tejî bû. Ez tenê bûm.

Ew gora pêwîstiyên xwe dewlemend, ez feqîr bûm. Min hemû tiştên madî winda kiribûn.

Lawê min dixwest wekî çûçika zer azad be, bifire, vegere welat. Ne mimkin bû. Bi cezayê hepsê, rê li me hatibû girtin.

Hêlîna çûçika zer bi bomban, bi dermanê kîmyeyî xira nedibû. Di welatê me de leşkerên dagîrkeran gund, daristan dişewitandin. Sewal (heyvan) bi daristanan ve yek dişewitiyan.

Min têkiliyek diyalekt di navbera daristanên, heyvanên, xwezaya Kurdistanê û ya Swîsrayê de dayna.

Ez welatê xwe di rihê xwe de digerînim. Tirajediya, êşa welatê xwe bi helbestê tînim ziman, nîşan didim. Kesî rehber nagirim. Texlît nakim. Gora xwe, teybetiya xwe dinivsînim. Tirajediyan bi destanî, wekî destan tînim ziman. Helbesta min hestên, axînên, janên, êşên, kêfxweşiyên min dibirqîne. Min tarîf dike, dide nasandin. Qîrîn û hawara min e. Qilavuza ku bi hevokan hatiye munandin e. Wek şûrekî dev tûj tayên dagîrkeran dibire. Helbest û muzîka gelekê, rewşa civakî ya wî gelî dibirqîne, dide ber çavan.

**Xûşka Evîn, di navbera helbestê û ziman de dikare çi têkiliyek hebe?**

Ziman nebe, helbest nabe. Di serî de helbest bi dev e. Devokî ye. Helbestvan wê dinivîsîne. Di demên berê de hewa destanî ye. Helbesta dînî (olî) bi hêla din ve dia ye.

Îlyada û Odyseîa ya Homeros, Bûyîna Xwedêyan a Hesîodos, destana Aeneas a Vergîilius, Dîwana Comedîa ya Dantê, Mem û Zîn a Ehmedê Xanî, Şahname ya Fîrdewsî, têkilî û danûstandina navbera ziman û helbestê, ji aliyê dîrokî ve nîşan didin.

Firdewsî, ji hêla Turk û Ereban hember dagîrkirina Îranê helwestê digire û dixwaze zimanê Farisî rizgar bike. Di Şahnamê de du caran behsa Kurdistanê dike. Vê rastiyê li wergera ku di sala 1453’an de bi zimanê Osmanî bûye, hêla Şerîfê Diyarbekirî ve hatiye wergerandin de hûdikinê. Armanc çi dibe bila bibe, şerê navbera Rostemê Zal û kurê wî Suhrab tirajediya me Kurdan e, bi ziman herêm, herêm belav bûye.

Zimanê min qedexe ye. Bi wê ve girêdayî helbest jî qedexe ye. Loma helbestvan bi nivîsandina helbestan ziman li tehlîka windabûyînê, jarbûyînê dûr digire, diparêze, dewlemend dike, dixemlîne. Lêv û pênûs hacetên parastin û pêşvebirinê ne.

Helbestvanên xwedî dewlet di rewşa wekî me de nînin. Cudatî heye. Wek me êşên teybetî nakişînin. Helbestvanê/a Kurd mecbûr e ji bo azadiya welatê xwe teşiyê birise. Tevnê dayne. Çînîkan bi cih bike û maneyan li xwendevanan bide fêm kirin. Ji aliyê din de wek mînak E. Xanî berpirsiyariya xwe aniye cî.

Ji bo Kurdan azadî tune. Helbestvanê/a Kurd azad nîne. Dewleta ku azadiya jinê negire berçav, kevneperestiya berê diparêze, xwedî dike. Ya ku zimanê me diparêze û dide fêr (hîn) kirin, jin e. Ya ku bi recmê (di bin barana keviran de) tê kuştin ziman e, jina Kurd e. Bi kuştina jinê, ziman jî li holê tê rakirin. Armanc ew e. Ziman di civatê û, malbatê de haceta danûstandinê ye. Dayîka Kurd kaniya têkiliyan e. Ew ziman diparêze. Wekî çeper ber windabûyînê disekine. Xwedî helwest e.

Ola Îslamê bi serdestiya çanda Faris û Ereban di nav civatan de xwe ba dike. Çanda wan neteweyan bi rêya din dîroka neteweya me dagîr kir, hêjî dike. Kurdan ji nirxên wan yên pîroz sar û dûr dike. Ramanê xira dike. Hezkirinê dikuje. Bindestiyê tîne.

Em li şûnên pîroz bi zimanê, hevokên Xwedayên jin duayan (niyazan) dikin. Bi



sedsalane ew çand dom dike. Olên Xwedayên jin em wekî millet parastin. Tav (roj) Xwedayê ya milletê Kurd yê mê ye, jin e. Olên ku xwedî yek Xwedê ne, xwedayên mêr in, em ji netewa xwe dûr û sar kirin. Welatê me dan dagîrkirin. Bi reya wan olan jina Kurd jî bû hêsir, girtî. Hêsîrtiya jinê, hêsirtiya millet, welat û ziman anî. Çanda nejadperest em maf kirin. Pêşiya helbesta bi zimanê Kurdî de bû çeperek ji axuyê (jehriye). Ew di hundir de darizandin, fetisandin. Tovên zimanê Erebî, Farisî, Turkî şîn kirin.

Têkiliya navbera helbest û ziman dîalektîk e. Çawa ku roj ji ronahiyê, ronahî ji rojê nayê veqetandin, çem ji çavikê, çavik ji çem nayê veqetandin, wisan jî ziman ji helbestê, helbest jî ji ziman nayê dûrkirin, veqetandin. Ne mimkun e.

Ez dema şîr didim zarokên xwe bi zimanekî helbestvanî hevokên hezkirinê dibarînim ser wan. Çîrokên bi rêçikên Kurdevarî hatine xwedîkirin, cîhana wan ya xeyalî dixemlînin. Zimanê min yê helbestvanî li nînikên min biyanî ninin. Kanî yek e. Zarok ji min zimanê şîrîn hîn, fêr dibe. Bi nêzîkbûyîna min hez dike. Helbest dinya min a hundir nîşan dide. Psîkolojiya min dide dest. Her



Wêne 1

kelîmek manakî bar dike, dikişîne. Keserên lîrîkî wekî mirovên nav guliyan de xuyakirî ne. Bakirina guliyan muzîkal e. Ziman û helbest, helbest û muzîk wek senfonîkî ne. Helbest û ziman bi diyalektî li hev tên.

**Tu pirtsgirêka zaravên Kurdî li ser Helbestê çawa dinirxînî? Nezîkayî çi ye? Bandora zaravan li ser helbestê çi ye?**

Berê zayîna Îsa, 1.800 de, Mittanî û Hûrrî bûn yek, hatin cem hev. Wan her du zaravayên îro xeber didan.

Kukulî yên Mîttanî ji bo perwerdekirina hespan 120 tablêt (hew) nivîsandine. Ew jî li wan yek e.(wêne 1) Nivîsandina Mittanî û Hûrriyan ya ku Kukulî ji bikaraniye beriya zayînê û di sedsala 18’an de heye.

Dayîka zanayê Coxrafî Strabon (beriya zayînê 58, paş zayînê 23) Med bû. Gora Strabon li herêma Komagene gelek (pir) zarava dihatin xeberdayîn. “Sophene(Dêrsim), li Bakurê Mezopotamiya û Komagênê bû û bi çiyan hatibû dorpêçkirin.” (Strab.liv. XI, rûpel.521.) Ji Homeros vir va, di dîroka gelên cîhanê de hebûn û dewlemendiya zaravayan bê nîqaşkirin tê dîtîn û ew rastiyek e.

Ji Homeros vir ve nivîskar û helbestvanên Yûnanî(Grekî) bi her du zaravayan jî dinivsînin. Beriya şoreşa 1789’an li Fransayê, 34 zarava hebûn. Dema şoreşê %13 rûniştvanan, Fransizî xeber didan. 1860’an da dema ku yekbûyîna Îtalya hat çêkirin, %2.5 rûniştevanan Îtalî xeberdidan. Dante pêşta bi Latînî nivîsand. Paşê Dîwara Comedîa bi Îtalyanî nivîsand. Heta sedsala 13.emîn zimanê Fransizan tune bû.

Pêwîste Kurd zaravan bidin ber hev, ser wan bixebitin (bişixulin), giramerên muqayese yên akademîk çap bikin. Ser antoljiya helbestan û tîpan bisekinin. Ji bo ku ziman ji pirsgirêkan xelas be, zelal be, pêwîst e zanayên wê beşê gora berpirsiyariyên xwe hewlê bidin. Ne berjewendiyên şexsî, yên neteweyî werin parastin. Gora zanîna min Prof. Dr. Qanatê Kurdo di vê hêlê de hewil daye. Kurmacî û Soranî nirxandin kiriye. Ser girammerê sekiniye. Hewcedariya herî girîng giramerên dîrokî werin keşifkirin, vekirin û giramera neteweyî were tespîtkirin û çapkirin.

Ew xebata zanistî dê binyata yekbûyîna neteweyî ya Kurdan xurt bike. Ew pêşveçûyîn ew dê ser helbestê jî tesîra pozîtîf bike. Yên zaravayên cuda dixebtînin, bi rehetî hev fêm bikin. Tamên helbestan parva bikin. Mesajên nav de bigirin.

Li sîteya PEN’a Kurd ya înternetê de zaravayên Kurmancî û Kurmanckî(Dimilî) helbestên min hene. Helbest bi her du zaravayan jî delaliya estetîkî diparêzin.

Navarokê, manê, tamê winda nakin. Wekî kilama maqamikê ne. Li gor min zarava xemilandin û dewlemendiya ziman in. Pêwîste dewlemendiya zaravan ne tenê ji bo helbestan, wejeyê, zanînê, lêkolînan, lêkolînên zanistî jî werin xebitandin. Zaravayên cuda rastiyên me ne. Min her du zaravayên herêma Dêrsim-Qoçgîrî yê bi kar anîn, xebitandin.

Encamnameya Konferansa Standardkirina Zimanê Kurdî ew e; “Konferansa Standardkirina Zimanê Kurdî ku di çarçoveya sêyemîn Rojên Wêjeyê li Diyarbekirê de, di navbera rojên 17 û 18’ê Sermawezê de, bi tevlêbûna 54 delege û nûnerên saziyên civakî ên sivîl pêk hat. Konferans ji hêla Şaredariya Bajarê Mezin a Diyarbekirê ve, bi piştgiriya Enstitûya Zimanê Kurdî ya Amedê ve hate lidarxistin, delegasyonê bi van xalên jêr, ev deklerasyon weşand:

1- Rewşenbîrên ku beşdarî konferansê bûn, bal kişandin ser pêwîstiya zimanê standart, lê hate gotin ku ev yek tenê bi biryarên Konferansê pêk nayê; pêwîstiya bi têkiliya di navbera zaravan de hate bilêvkirin. Her wiha hate gotin ku divê her zarava hebûna xwe biparêze, di nava demê de hêdî hêdî nêzî hev bibin.

2- Zimanzan û ronakbîrên ku beşdarî konferansê bûn, bang li hikûmeta Herêma Kurdistanê ya Îraqê kir ku li Hewlêrê konferanseke esasî û berfirehî, li ser heman armancê bê lidarxistin.

3- Ji gelê Kurd ên li Turkiye, Sûriyê û Îranê hate xwestin ku hewl bidin di hemû jiyana xwe de zimanê xwe bi kar bînin.

4- Hate xwestin ku perwerdeya bi zimanê Kurdî li Turkiyeyê ligel zimanê Turkî, li Sûriyeyê ligel zimanê Erebî, li Îranê ligel zimanê Farisî bê kirin.

5- Beşdarên konferansê pêwîst dît ku li zanîngehên Turkiye, Îran û Sûriyeyê li cihên ku zêde Kurd lê dijîn, destûr bê dayîn ku beşên ziman û edebiyata Kurdî bên vekirin.

6- Ji bo standartkirina zimanê Kurdî pêwîst e ku zanîngehên Kurdan ên li Îraqê, hêdî hêdî derbasî bikaranîna tîpên Latînî bibin.

7- Ji bo standartkirina Zimanê Kurdî pêwîst e ku gav bi gav, di tevahiya perwerdeya bi zimanê Kurdî de alfabeya Kurdî ya Latînî serdest bibe.

8- Beşdarên konferansê bal kişand ser girîngî û pêwîstiya xebatên ji bo avakirina saziyeke akademîk ya zimanê Kurdî.

9- Hemû beşdarên konferansê diyar kir ku li Turkiye, Îran û Sûriyeyê polîtîkaya asîmîlasyonê otoasîmîlasyonê gihîştiye asteke xeter. Li hemberî vê yekê divê tevgereke gelêrî bi pêşengiya hemû saziyên Kurd dest pê bike. Beşdaran xwest ku her Kurdek bibe piştgir û parêzvanê zimanê Kurdî. Li ser navê delegasyona konferansê;

Îzedîn Mistefa Resûl
DehamAbdulfettah
Samî Tan
Reşîd Kirmanc
(19.11.05/Diyarbekir)

**Tu wekî jinek Kurd di helbesta Kurdî de jinê çawa dibînî?**

Li gor pirtûka Prof. Dr. Qanatê Kurdo ya **Tarîxa Edebiyata Kurdî**, mijarê bigirine dest; Elî Herîrîyê di sedsala X-XI da bigirinê, Ehmedê Melayê Batê (1417-1491) di **“Zembîlfiroş”**ê de, Feqiyê Teyran, Dîlber “Ey Dîlbera gerdan zerî” de, Meleyê Cizirî, “Dil ji min bir” de, Ehmedê Xanî jî di Mem û Zîn’ê de jina Kurd girtine dest. Wekî mijara helbestê bikar anîne. Yên îro jî bi kar tînin.

Rastî ew e; jin di wan helbestan de wek objeyek, tiştek, hacetek hatiye xebitandin. Bi hemû nasnameyên xwe nehatiye destgirtin. Bejnibal, delalî, şoretî mijar e. Ew haceta zevq (tam) girtin û dayînê ye. Yan bi jiyanê ve girê dide, yan jî tama jiyanê li holê radike! Helbestvanên mêr gora ramanên, dîtînên, nêzîkbûyînên xwe jinê dixemlînin, dipêçînin. Navdaran pê ve dikin. Jin tenê ya hezkirinê ye, kêfê ye!

Jina Kurd helbestvan e. Bi zaroktiya xwe de dest bi xwedîkirina zarokên ji xwe piçûktir dike. Ji bo ku wan bide sekinandin, lefzan û gotinan li hev tîne. Demên din de jî gora bûyeran, hestên xwe bi devikî yan jî nivîsandinê tîne ziman. Çi heyfe ku helbestên jina Kurd bi piranî nehatine nivîsandin. Loma winda bûne. Îro jî dibin. Mirovên xanima Kurd, civat û dagîrker, ber jîna Kurd bûne asteng. Ew nebûye xwe bixwe.

Serkeftina jina Kurd ew e; ew bûye sebeb, hîm, mêrê Kurd mecbûr bûye helbest nivîsandiye. Xanima-xatûna Kurd daye nivîsandin. Ez bawer im qesîkî xanima Kurd bi devokî helbestê dibê, weqes naxweyî ne.

Min di helbasta xwe de bi ferehî jina Kurd wek mijar girtiye dest. Xwestin, bang, guman, rexne, hişyarî, kar, berpirsiyarî, gillî pir vekirî nivîsandine. Ew bi alên pozîf û negatîf wek peyker e. Ji her aliyekê ve ji min re mijar e. Ez xwe berpirsiyar, mecbûr dibînim ku xanima-xatûna Kurd bigirim dest û li ser teybetiyên wê bixebitim. Di lêkolînên min de jî jina Kurd mijara yekemîn e.

**Çawa û çima tu bûyî helvestvan?**

Çawa ku roj çavika ronahiyê ye, çawan roj û ronahî ji hev nayên cuda kirin, veqetandin û yekîtiya diyalektîk nîşan didin, helbest û helbestvan jî wekî wan girêdaiyeke diyalektîk û xwezayî nîşan didin. Çemê bê çavî nabe, ne mimkin e. Helbestvanê bê helbest jî tunne. Vê pirsê Descartesê filozof anî bîra min. Helbestan dinivîsînim, ew nîşan dide ku ez heme. Descartes gotibû **“Cogito Ergo Sum-difikrim, heme.**" Eger pirs bi çima re girêdayî be, mirov dikare bibêje ew jêhatîbûn jenetîk e, yanê mirov dema ku tê dinê xwe re yek tîne (idéae innetiae). Yan jî “ideae adventia" ji sedemên derveyî bedenê, der û dorê, îdealên derveyî me ne. Yêkitiya diyalektîk di navbera sedemên hundirî û derveyî de heye. Cevherên hundirî mirov ku bikare tespît bike, ser bişuxule, encamên baş(rind) digire.

Ez nizanim ev teybetî û gêrûfî dema hatim dinê, tim ji min re hebû, yan na? Çiyayê Çengeliyê ku ji bo Kurdan ziyaret bû, gundê min Çîmen li bin lingan ava bûbû, em bi ava xwe mezin kirin. Ruhek helbestvanî dida gelê herêmê. Teybetî ola ku çavî, temel li ola Zerdeşt tê, ser me bibandor bû. Malên me de saza ku di cem û civatên olî de, rojên dînî de, bo îbadetan, yan jî ji bo şahiyan, kêfxweşiyan dihat xebitandin, riha wêjeyê, muzîkê dida me. Wêje, muzîk li me dida hezkirin.

Çawa çiyayê Olympos wekî ziyaret ser gelê Yûnan(Grek) bandor kiriye, helbestvanên Yûnanistanê ew esas girtine. Xwezaya me jî li ser me aliyê pozîtîf de tesîr kirî ye. Ew eşkere ye. Muzîk û wêje, di herêma min de, **qedexe, yan jî guneh nine**. Hest wek helbest, kilam, kenok, çîrok, destan bi rehetî tên gotin. Saz û ensturomanên din jî tên xebitandin. Loma helbestvaniya min gelek xweza ye, normal e. Herwiha, çiyayên, dar û berên, çemên me yên pîroz em xwedî kirin. Xwebawerî, xwestin, armanc, hezkirin dane me.

Li gor teybetiya herêma xwe, ez dikarim rewşê bi sivikayî bidim fêmkirin; mêşa hinguv û hinguv, kereng û benîşt, av û hopik, dara hinarê û hinar çawa ku li hev nayên qetandin, cudakirin, mirovên herêma min û ez jî li hunerê, wêjeyê û helbestvaniyê wek wan nayên dûrkirin, cudakirin. Em di zikê dayîkan de jî bi muzîk û wêjeyê gir dibinê. Lêkolînvanên zanistî tespît kirine ku muzîk ji bo zarokê di zikê dayîkê de wek derman e. Mêjiyê zarok perwerde dike. Dema pêşveçûyîna hestan zêdetir zindî dike û aliyê pozetîv ve dide berxwe.

Kes nikare bibêje hinar çima çîçekê dide, vedike! Kes nikare delaliya çîçeka hinarê wêşêrîne, înkar bike. Kes nikare bibêje hingiv çawa bû hingiv. Mêşa hingiv beriya hingiv e. Çîçekên çiya beriya hungiv digêşin, vedibin. Bê mêşa hungiv, hingiv nabe. Lewra helbestvan nebe helbest û helbest jî nebe helbestvan, nabe. Sosyalîzasyona şexsiyetan gelek mihime, pisporiyê de, bijartina beşan de hîm e.

Sebebê hebûna helbesta xwe helbesta Şirnex’de dikarim bidim nîşan. Endamên arteşa dewleta Tukan welat dişewitandin. Dermanên kuştinê davêtin. Mirov digirtin bin çavan û winda dikirin. Ez li herêma Botanê bûm. Min parêzvaniya mafên mirovan dikir û rojnemevan bûm. Min nedikariya hember qetlîama xwezayê bêdeng, bê helwest bimînim. Bibim temeşevanek pasîf. Tenê biqehirim, bigîrêm, xemgîrbim û eziyetê bidim canê xwe. Li mala xwe rûnim û helbestê binivîsînim. Hember helwesta dagîrkeran, dujminê xwezayê, zêdebûnê, min jî helwest girt. Gel û xwezaya xwe parast. Bûm çalekvan. Çiqas kanî, çiqas dest min de hat, min bersiv da. Zarokê xwe yê 8 mehanî girt ber singê xwe û ketim rê. Çûm bajarê Şirnexê. Rewşa daristanan, ya gundî û bajariyan dît. Nûçeya xwe amade kir. Bûm dengê bêdeng û bê zimanan. Xwendîvanên kovara ku min tê de dinivîsand li bûyeran xeberdar bûn. Ew şewitandin, komkujî bû mijara helbesta min. Helbesta min sûrrealîst nine. Li rastiyên jiyanê derdikeve. Helbesta min jiyan berxwedan û tekoşîna min û ya neteweya min tînî ziman, diqîre, bang dike. Tabloya ku bindestiyê, dagîrkeriyê munandiye, tîne ziman. Quncikên ku tariyê de mayîne tînî ber çavan.

Ez û Descartes di deriyên cuda da ji jiyanê re dinêrin. Wî ser axa xurt te binyata felsefa xwe dayna. Min jî ser rastiyên Kurdistanê de derxunê helbesta xwe bicîh kir.

**Dûmahîk heye**

# BIŞAVTIN

ADAR JIYAN
adarjiyan@mynet.com

Li kîjan devera dinê dibe bila bibe, bişavtin pêşî bi ziman dest pê dike. Bişavtina zimên dibe sedema bişavtin û mehandina nirx û hêjahiyên civakê. Bişavtin û mehandina nirxên civakê jî bi hema awayî dibe sedema tunekirin û jiholêrakirina çanda civakê.

Di navbera ziman û çandê û çand û civakê de têkilyeke zexm û çarenîn heye. Heta ku pêwendiya navbera ziman û çandê neyê fêmkirin û ravekirin, ne bandor û hîkariya navbera zimanên ku têkililiya wan bi hevdû re heye, tê fêmkirin û her ne jî pêşveçûn û geşedaniya ziman û civaka ku bi wî zimanî diaxive tê fêmkirin.

Ziman jî wekî heyîneke jîndar, ji tune de nû dibe, dijî, geş dibe, distewe, dikemile û hin caran jî dihele, dimehe, têk diçe û ji holê radibe. Jiyîn û temenê ziman jî wekî yê heyîneke jîndar, li gorî erdnîgarî, avhewa, atmosfer, erdnîgarî û mercên heyî, kêm an jî zêde dibe. Yanî zimanek rasterê girêdayî hebûn û hebana peyv, gotin û biwêjên xwe, an qels û lawaz an jî xurt û dewlemend dibe.

Zimanê Kurdî li gorî şert û mercên îroyîn, belê nemaze jî li çarnikarên welêt bi sedan sal bêxwedî û bêxwedan maye. Ango bi vegotineke din, bi hewaya Xwedê tev de ye.. Ji bastûr û binyata wî pê ve tu tişt pê nemaye. Lewre, pêşveçûn û geşedaniya zimên rasterê girêdayî çand û çandyariya civakê, hebûna xwe diparêze, xurt dibe û pêşve diçe.

Ziman, ji hêla din ve jî li gorî çandyariya civakê qels û kêmhêz an jî xurt û dugurd dibe. Îcar çandyarî û ziman jî her gav beramberî hevdû, pevre û di zikê hev de dijîn; pêşve diçin an jî ji holê radibin. Çandyarî û geşedaniya zimên, bi sê cureyên bingehîn derdikve pêşberî mirov:

**1. Çandyariya bêmedî, bêdilî(bi zorê)**

Ew çanda ku mirov bi pest, kotek û darê zorê, bi qedexekirin, manîkirin û astengkirinên tund û dijwar re rû dide ye. Bîr û baweriyên hişk, bîrdoz û kevneşopiyên ku bi zagon û qanûnên bingehîn re der dibin û mirov didine pejirandin di vê kategoriyê de cih digirin. Mirov dikare, guhertina navan, navlêkirina guherandina cih û waran wekî mînak nîşan bide.



**2. Çandyariya rasthatî (ketberê)**

Bi rê û rêbazên ketberê û eletewş re dan pejirandina çand û zimên, wekî çandyariya rasthatî tê binavkirin. Bîr û baweriyên netêw û betal, têkiliyên pûç û pilûç, çanda qehwexaneyan, tilyak, xebitandina zayendî û pêwendiyên rêşaş û bêrê di vê kategoriyê de cih digirin.

**3.Çandyariya qesdanî, biqestî(biarmanc)**

Wekî çandyariya ku bi mebest û armanc û her wiha bi plan û pêşnûmayên bi rêk û pêk re pêk tê, tê navandin û pejirandin. Perwerdehiya belave û honakî, kurs, dersxane û hemû sazî û mezrîngeyên perwerdehiyên taybet û fermî di vê kategoriyê de cih digirin.

Gelek kes di vê baweriyê de ne û bi israr angaşt dikin ku zimanê Kurdî di bin bandora zimanê Tirkî, Erebî û Farisî de maye. Bandor û giraniya zimanê erebî û farisî ya li ser zimanê Kurdî rast e. Belê angaştên bandora zimanê tirkî ya li ser zimanê kurdî ew çend ne rast e; û derezanistî ye. Lewre gelek angaşt û hizrên der barê vê yekê, ji zanistê bêtir de siyasî ne. Ez bi xwe di vê baweriyê de me ku li Anatolya û Mezopotamyayê ji zimanê kurdî bêtir zimanê tirkî hatiye/tê bişavtin û tunekirin. Îcar ji ber tu kes li bingeha peyvên ku îro wekî tirkî têne dîtin û bikaranîn napirse û zêde serê xwe jî pê naêşîne; dibêjin "zimanê kurdî dibin bandora zimanê tirkî de naye. Ligel ku gelek peyvên ku kok û qertafên wan erebî, kurdî û farisî ne, ji hêla hin kesên ku xwe wekî zimanzan didin nasîn ve wekî peyvên tirkî têne angaştin û nasandin. Di çend salên dawî de ziman bûye zimanekî polîtîk. Polîtîzebûna zimên gelek caran dibe dewlmendbûna zimên jî:

Bo nimûne:

Peyvên ku di çend salên dawî li Behdînan û Tirkiyê li zimanê kurdî zêde bûne:

Aştî, azadî, berxwedan, serhildan, têkoşîn, têkoşer, çalakî, livbazî, helwest, bertek, sîxurî, cerdevan, şoreşger, şoreşvan, şervan, pevçûn, lêkdan, tawanbarkirin, binçavkirin, darizandin, bişavtin, mamoste, perwedehî, xwendekar, zanîngeh, lêkolîn, dahûrandin, ronakbîr, rewşenbîr, di çend salên dawî de ziman bûye zimanekî polîtîk. Polîtîzebûna zimên gelek caran dibe dewlmendbûna zimên jî.

## *Nehemîn Festîvala Gelawêjê ya wêjeyî û rewşenbîrî li Silêmaniyê*

**Agirî/ Mihemed Cemîl Kulahî**

**Li jêr dirûşma: Silêmanî jivana hogirên peyva azad û wekî pêvajoyeke ronakbîrî ya salane, piştî lidarxistina 8 Festîvalên wêjeyî û rewşenbîrî ji bo helbest, çîrok û lêkolînê; sibêdeya roja 20.11.2005'an, li Silêmaniyê bi amadebûna hejmarek ji berpirsiyar û kargêrên Herêma Kurdistanê û mêvanên beşdar, nehemîn Festîvala Gelawêjê ya wêjeyî û ronakbîrî dest pê kir.**

**Hejmarek xuya ji wêjevan û rewşenbîrên Kurd li her çar parçeyên Kurdistanê, Kurdên Ewropa û Ermenîstanê û herwiha çend kesayetiyên Fars û Ereb tevlî Festîvala nehemîn ya Gelawêjê li Silêmaniyê bûbûn.**

**Di Festîvalê de ku 7 rojan dom kir, wêjevan û nivîskarên Kurd, Fars û Ereb berhemên xwe pêşkêş kirin. Di Festîvala Gelawêjê ya nehemîn de ciwanên nivîskar û helbestvanên nûgihiştî di warên cuda cuda de rolek gelek xuya û çalak lîstin û ewa xaleke balkêş ya Festîvalê bû.**

**Ji bilî helbest û çîrokê, çendîn lêkolînên girîng wek: Civak li hember gef û êrîşa terorê de(Ezîz Reuf), Basek li ser Îslama siyasî (Mele Bextiyar), gencên Kurd yekemîn projekta Merifî (Dr. Ferhad Pîrbal), hatin xwendin ku ji hêla beşdaran ve gengeşeyeke zaf li ser hate kirin.**

**Li rex van bernamane de, ji roja yekemîn heya dawiyê, pêşangeheke pirtûkan li pirtûkxaneya giştî ya Silêmaniyê hatibû vekirin ku ji aliyê gel ve bi germî hat pêşwazî kirin. Beşdarên Festîvalê sefera bajarê Şehîd yê Helebçeyê jî kirin.**

**Roja şemî, 26.11.2005'an, rê û resma roja dawiya nehemîn Festîvala Gelawêjê ya wêjeyî û ronakbîrî bi coşek mezin hat pîroz kirin. Ji aliyê Lijneya Nirxadina Festîvalê re, berhemên serkevtî hatin diyarî kirin û xelat ji wan re hate dayîn.**

**Hêjayî gotinê ye ku helbestvanê navdar yê Kurd, Şêrko Bêkes û çîroknivîsê mezin Reuf Bêgerd xelata navneteweyî ya ''Enqa''yê wergirtin ku ji aliyê vê rêxistinê ji wan re hate pêşkêş kirin.**




**Çeprast:**
1. Navê tirombêlekê ye – Xizîne.
2. Heke **s** bê zêdekirin di Farsî de tê wateya xirab.
3. Tarîtî.
4. Heke mirov nerihet be, vê peyvê tîne zimên.
5. Henek.
6. Heke **P** bê zêdekirin, tê wateya li derbarê.
7. Cem- Heke **M** bê zêdekirin navê kurekî hezretê Nûh e.
8. Navê mehekê ye bi Erebî- Kî- Berevajî navê darekê ye.
9. 6 sed salan berî zayînê bi ser Sûrye, Libnan û Felestînê de hikûmet dikir.
10. Heke **L** bê zêdekirin, navê paşayekî Aşûriyan bû.

**Serjêr:**
1. Ne xuya- Paşayekî Mad ku piştî kuştina Kembûciye hate ser kar.
3. Mewadek ku pêştir ji bo nermkirina dest û pê û ...bikar dihat.
4. Kurd ew in- Heke **L** zêde bikî, nikare biaxive.
5. Heke **G** zêde bikî, navê belavokekê ye- Hêrs.
6. Heke **X** zêde bikî, navê stiranekê ye - Îca.
7. Dewsa pê – Berevajî navê darekê ye.
8. Ba û baran û lehiya ku di Amerîkayê de hat.
10. Rûbarek e – Hingavtin.

# Bersîva Xaçepirsa hejmara 27



| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | N | A4 | Ş | O | R | | | Ê | V | A |
| 2 | | D | E | R | B | E | N | D | | P |
| 3 | A | | M3 | A | E | R | A | | Ç | |
| 4 | H | O | | | | X | | B | O | M |
| 5 | Î | X | A | E | T | | P | A | K | O |
| 6 | C | E2 | L | L5 | A | D | | Q | A | L |
| 7 | A | Ş1 | | | | E | R | | R | |
| 8 | N | | Q | A | H | F | Û | R | | Ê |
| 9 | | F | I | R | A | N | K | Î | S | T |
| 10 | S | Ê | R | O | M | | | P | Û | A |

Peyva Veşarti: Ş E M A L

# KOMA KAMKARAN MUZÎKA KURDÎ DİBİN ASTA CÎHANÊ

**Amadekar: Agirî**


Koma Kamkaran dibe endamê Koma Semfoniya Cîhanê

Hunera muzîkê wekî warek girîng ji nasnameya neteweyî divêt herdem ji bo pêşdeçûn û nûjenbûnê bihê bi kar anîn. Aliyekî din jî nasandina wê bi neteweyên cîhanê ye. Koma muzîkê ya Kamkaran, wek komeke muzîka Kurdî karî ye bibe endamê Koma Semfoniya Cîhanê ku navenda xebata wê li bajarê Londonê ye. Vê komê çawa karî beşdarî komên semfonî yên Ewropayê be? Bîjen Kamkar, serokê komê dibêje:" Li mêje me hewil daye ku bikarin guhartinan bi ser muzîka Kurdî de bînin heya bişên alet, kinc û strana Kurdî bi dunyayê bidin nasandin. Lewra ji bo vê armancê me karî bigihîjin vê astê ku bibin endamê Koma Semfonî ya Cîhanê." (1)

Koma muzîkê ya Kamkaran di gelek festîvalên ku di welatên cîhanê lidar dikevin, beşdar bûye. Di hemû festîvalan de bi cil û bergên Kurdî, stran û aletên muzîkê yên Kurdî berhem û karên xwe pêşkêş dikin. Vê çendê kariye muzîka Kurdî bi awayekî baş bi cîhanê bide nasîn.

**'Armanca me ne peyda kirina pare ye'**

Bîjen Kamkar, armancên komê wiha tîne ziman: "Armanc û merema me ne peyda kirina pare ye, belkî bilind kirina asta muzîka Kurdî di cîhanê de ye, hetanî em jî wek welatên cîhanê pêşve biçin."(2)

Koma hunermendên Kamkar meha borî mêvanê Girûpa Semfonî ya Orkestera bajarê Mamlo ya Swêdê bû û di mezintirîn salona bajarê Mamloyê de bi kincên Kurdî û aletên muzîkê yên Kurdî stran bi zimanê şirîn yê Kurdî pêşkêş kirin. 1200 kes Swêdî, Kurd, Fars û Ereb tevlî wê konserê bûbûn. Konsera han 4 seetan dom kir. Koma Kamkaran ji bo xizmet û nasandina huner û muzîka Kurdî rêya Kurdistana Îranê heya welatê Swêdê dabûn ber xwe.

**Jêder:**

**1. Rojnameya "Kurdistanî Nwê"**
**2. Jêdera berê**

agiri

**Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî**
**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne**

**http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/kurmanci. php**

**Navnîşana derveyî welat:** AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 –FRANCE
**E - Mail:**
**rojnama_agiri@yahoo.com**
**agiri2003@hotmail.com**

# Pirsgirêk û astengên ser rêya dengbêj û hunermendan li Urmiyê

**Kêleşîn Rojhilat**

Bi giştî demekê warên cur bi cur yên hunerê di civakê de rola xwe ya girîng û hewce dilîzin û bandorê li ser hemû aliyên jiyana neteweyî dikin û çand û wêjeyê pêş dixin, ku bi awayekî zanistî, akademîk û nûjen bihê bikar anîn.

Di vê nivîsarê de armanca me tenê nirxandina rewşa hunermend û dengbêjan li herêmên Kurmancaxiv yên Kurdistana Îranê yanî bajarên Urmiye, Selmas, Makû û Xoyê ye.

Di civaka me ya Kurdewarî a herêmên navhatî de, mixabin her di qonaxa yekem de, heke kesek gavekê ber bi cîhana muzîk, dengbêjî û heta hunermendiya zanistî jî -ku her nine- bavêje, di destpêkê de ji aliyê malbata xwe ve ku dikare mezintirîn alîkar ji bo haydana wan di vê xebatê de be, bi tundî tê rexne kirin û di nava civakê de bi kesekî xweşnav nahê hesibandin. Hin caran ew bi çaveke sivik tên temaşa kirin û bê kesayetî tên zanîn! Ji bilî pirsgirêkên girîng yên jar, ev kosp û astengên ku li jêr tê bas kirin, rêya hunermend û stranbêjan li bajarê Urmiyê û herêmên din yên Kurmancaxiv li Kurdistana Îranê ji bo pêşxistin û zindîkirina hunera dengbêjiyê û bikaranîna metodên zanistî û nûjen dijwar kirine:


Dengbêj: Hemîd Hemîdî


Dengbêj: Hemîd Xemgîn

- Dengbêj ji bo stranên xwe ji tu çavkaniyekê mifahê nastîne, yan helbestvan tu ninin ku helbestan ji bo naveroka stranan ji wan re vehûnin.
- Aheng çêkirin û cî bi cî kirina muzîkê dîsa her bi stûyê wan bi xwe ye.
- Tu sendîka û rêxistinek nehatiye avakirin ku piştgiriya wan di hemû waran de bike.


Dengbêj: Qinyas Hemîdzade

- Tu cihek ji bo temrîn kirin û xebatên wan yên taybet wekî studyo nehatiye danîn.
- Ji ber xirabbûna rewşa aborî ya hunermendan, ew ji stranbêjiyê wekî jêderekê ji bo dahatê mifahê distînin, wek stran gotin di nava govend û şahiyan û wergirtina **şabaşê** ku her ev kare kesayetiya wan ya hunerî di civakê de dişkîne.

Xalên ku li jor ketin berçav, pareke zaf kêm ji wan pirsgirêk û astengane ne ku heke kesek bixwaze xebata hunerî û muzîkê li Urmiyê û herêmên din yên Kurmancaxiv bide dest pê kirin, divê bi wan re tevbigere. Bi vê hêviyê ku rojek bihê ku hunermend û dengbêjî cihê xwe yê jêhatî di civakê de bidestve bînin û civaka me jî bi awayê jêhatî hunermendan di hembêza xwe de bihebîne.

# Wexera dawî ya stêrkeke geş yê esmanê helbest û wêjeya Kurdî

Mixabin sibêdeya roja sêşemî 22.11.2005'an, helbestvanê mezin yê Kurd **Omerê Sultanî** naskirî bi **Wefa** jiyan bidawî anî û ji bo herdem xatira xwe ji netewe û malbata xwe xwest.

**Omerê Sultanî(Wefa)** bi yek ji pêşengên helbesta nû ya Kurdî tê hesibandin.

Wî di destpêkê de helbest bi zimanê Farsî dinivîsîn.

Piştî serbestberbûn ji girtîgehê paş derbeya 28'ê Gelawêjê,**Wefa** dest bi hûnandina Helbesta Kurdî kir û di vî heyamî de gelek helbest û berhemên hêja û nazik ji bo dîroka wêjeya Kurdî wek diyarî bi cih hiştiye.

Termê pîroz yê **Wefa** bi beşdariya berfireh ya xelkê bajarê



Bokanê û wêjevan û Edebdostên Kurdistanê di goristana vî bajarî de hate veşartin.

Riha wî helbestvanê mezin şad û yad û bîranîna wî bixêr be.

# UN'ê Îran seba binpêkirina mafên mirovan mehkûm kir

Roja înê, 18.11.2005'an, Komîteya sêyem ya Rêxistina Neteweyên Yekbûyî derheq binpêkirina berdewam û berfireh ya mafên mirovan ji aliyê hikûmeta Îslmaî a Îranê biryarnameyek pesend kir û tê de ev rejîme mehkûm û şermezar kir.

Di biryarnameya han de berpirsiyarên Komara Îslamî bi tirsnadin û binçav kirina parêzvanên Mafên Mirovan, cudabîran, neyarên hikûmetê, nûçegihanan û rewşenbîran hatin gunehbar kirin. Her wiha ji ber bikaranîna îşkenceyê û sizayên bêrehmane wekî jêkirina endamê cendekê mirovan, îdama li ber çavên xelkê û di cihên giştî de û îdamên kesên kêmtemen û hwd... rejîm bi



xurtî hatiye şermezar kirin.

Ev biryare ji hêla dewleta Kanadayê hatibû pêşniyar kirin û bi 77 dengên ERÊ , 51 dengên NA û 46 dengên BÊALÎ hate pesend kirin.

Qirar e ku biryarnameya pesendkirî di destpêka meha Dêsambrê de, di Civata Giştî ya Rêxsitina Neteweyên Yekbûyî de jî deng jê re bihê standin.

**VOANEWS**